

Birêz Hesen Şerefî

Pênûsa rêberên Komarê di rojnama Kurdistan de diyar e

•••» 2

# Agirî di pêşerojê de dikare bibe têza masteriyê û ...



Mihemed Salih Qadirî

3 «•••


# AGIRÎ

bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de

Duheftînameyek Siayasî-GiŞtî Ye, PDK Îranê DiweŞîne www.kurdistanmedia.com/kurdî www.agirimedia.org Hejmar (201) 05-03-2013 Buha (150) Tûmen


**Roja 8'ê Mars pîroz be**

Roja 8'ê Mars roja rêzgirtina ji jinê û azadiyên jinên cîhanê e. Em di vê rojê de tevî rêzgirtina ji tewaya wan jinên ku canê xwe bo azadiya jinê gorî kirine, rêz û û hurmetê digrin ji wan jinên Kurd ên têkoşer ku canê xwe di riya azadî û serbestiya Kurdistanê de gorî kirine, da ku neteweya wan jiyek Birûmet hebe.

Rostem Cehangîrî



Rewşa şoreşa Kurd li Rojavayê Kurdistanê

•••» 4

Azad Kurdî



Gotûbêjên Îmraliyê

•••» 5

kavûs Ezîzî



Ji Urmiyê heya Sinê xwîn

•••» 6

Arif Vêlzî



Îran şerê mesebî geş dike

•••» 7

Şehab Xalidî



Bê azadiya ziman welat demokratîze nabe

•••» 10

## Tîrêjên Kurdistan û Agirî tucar natemirin




Roja 28'ê Şibata 2013'an, simînarek bi hênceta 200'mîn hejmara rojnameya "Agirî" û 600'emîn hejmera rojnameya "Kurdistan", bi beşdariya birêz "Mistefa Hicrî" sekerterê giştî, endamên rêberî û hejmarek kesayetiyên siyasî û akadimîk li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê birêve çû. Simînarê bi xwandina sirûda netewîya "Ey Reqîb" û ragirtina çend deqeyan bêdengî bona rêzgirtina ji canê paqij ê şehîdên Kurdistanê dest pêkir.

Paşan "Nahîd Husênî" endama Komîteya Nawendî a PDK Îranê û berpirsa beşa çapemeniyê a vê partiyê, peyamek bi vê boneyê pêşkêş kir.

Di panêla yekem a vê simînarê de "Hîmdad Husên" mamostayê zanîngehê gotarek pêşkêş kir ku têde serbarê şirovekirina aliyên pirofîşînal ên rojnama Kurdistanê weke rojnameyek pêşkevtî li serdemê zêrîn ê Komara Kurdistanê de, amaje bi cih û bandora rojnameya Kurdistanê di nav rojnamegeriya Kurd de kir.

Piştî navbirî, rojnamevan "Şadman Hesen" çend peyvek û pêşniyar li ser dîroka rojnama Kurdistan û herweha qonaxên curbicur ên bilavbûna vê rojnamê piştî hilweşana Komara Kurdistanê pêşkêş kir. Deqê vê raporê bi berfirehî hûn dikarin li rûpelên du û Agirî de bixwînin.

# şerê deshilatê

Şehab Xalidî

sergotar

Şer û kêşeya di navbera baskên rejîma Îranê de roj bi rojê berfirehtir dibe, bi awayekê ku êdî ew bixwe jî nikarin wan kêşeyan û nakokiyan veşêrin. Mînaka herî berçav ya wan nakokiyan şerê herî germ ê vê dawiyê li nav hola parlementoya rejîmê di navbera Elî Larîcanî serokê parlementoyê û herweha Mehmûd Ehmedînijad serkomarê rejîmê de bû.

Dengvedana vî şerî di astekê de bû ku Xamineyî pirr nîgeran kir. Lewra Larîcanî bilez daxwaza lêborînê ji Xamineyî kir. Mînaka din ya herî berçav ya nakokiyan ew konferansa çapemeniyê bû ku bo Ehmedînijad hatibû lidar xistin û bi awayê zindî bilav dibû.

Di vê Konferansê de jineke nûçegehan ku weha diyar bû ser bi bereya dijî Ehmedînijad e bi tundî Ehmedînijad rexne kir, û gotê ku te dema destpêka serkomariya xwe de basê anîna perê petrolê bo ser sivkên xelkê kir, lê niha xelk di rewşeke pirr xirap de dijîn. Herweha gotê ku meztirîn dizî li serdemê serkomariya te de rû da, û hinek rexneyên din ên tûj jê girtin. Lê piştre me dît ku ew weşana zindî ya konferansê hate qût kirin, ku vê yekê Ehmedînijad û alîgirên wî pirr nîgeran kir.

Di rastî de êdî şerê wan tenê û tenê li ser parastina deshilatê bona talankirina zêdetir ya xelkê welat e, û ew diruşmên ku di warê xizmeta bi xelkê welat didin, êdî kes nine nezane ku ew diruşm wê tenê li ser kaxezê bimînin.

Lewra ne ew şerê li ser deshilatê bidawî tê, û ne jî xelk wê bi diruşmên wan bêne xapandin, û dibe em hêvîdar bin bi rojên xweş û geş, ên piştî nemana vê deshilata biyûm.

# Bi boneya 600'emîn hejmara rojnameya Kurdistan û 200'emîn hejmara Agirî simînarek birêve çû





Roja 28'ê Şibata 2013'an, simînarek bi hênceta 200'mîn hejmara rojnameya "Agirî" û 600'mîn hejmera rojnameya "Kurdistan"ê, bi beşdariya birêz "Mistefa Hicrî" sekerterê giştî, endamên rêberî û hejmarek kesayetiyên siyasî û akadimîk li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê birêve çû. Simînarê bi xwandina sirûda netewî ya "Ey Reqîb" û ragirtina çend deqeyan bêdengî bona rêzgirtina ji canê paqij ê şehîdên Kurdistanê dest pêkir. Paşan "Nahîd Husênî" endama Komîteya Nawendî a PDK Îranê û berpirsa beşa çapemeniyê a vê partiyê, peyamek bi vê boneyê pêşkêş kir.

Di panêla yekem a vê simînarê de "Hîmdad Husên" mamostayê zanîngehê gotarek pêşkêş kir ku têde serbarê şirovekirina aliyên pirofîşînal ên rojnama Kurdistanê weke rojnameyek pêşkevtî li serdemê zêrîn ê Komara Kurdistanê de, amaje bi cih û bandora rojnameya Kurdistanê di nav rojnamegeriya Kurd de kir. Piştî navbirî, rojnamevan "Şadman Hesen" çend peyvek û pêşniyar li ser dîroka rojnama Kurdistan û herweha qonaxên curbicur ên bilavbûna vê rojnamê piştî hilweşana Komara Kurdistanê pêşkêş kir. Di dawiya panêla yekem de "Hîmdad Husên" pirtûkek li jêr navê "Rojnameya Kurdî li serdemê Komara Demokratik a Kurdistan"ê de pêşkêşî Rêzdar "Mistefa Hicrî" sekerterê giştî yê PDK Îranê kir. Di Panêla dûyem a simînarê de, rêzdar "Hesen Şerefî" cêgirê sekreterê giştî û berpirsê komisyona ragehandinê ya PDK Îranê, basek bi vê boneyê pêşkêş kir.

Rêzdar Hesen Şerefî di beşek ji axavtina xwe de weha got: "Bona vê yekê ku rojnameya Kurdistan derkeve nava qada medyayî û geşekirina çandî a Kurdî, em dibînin ku serbarê vê ku Komara taze hatiya avakirin û îmkanatên pirr destpêkî bona hindek ji bernameyên despêkî di karûbarên xwe de nine, lê îmkanatên hewce bona derketina rojnameya Kurdistanê û kovar û belavokên din dabîn dike û çapxaneyê ava dike bona vê ku bikare beşek ji armancên xwe bidest bixe. Eva ku rohn û eşkere ye ew e ku 113 hejmar jê hatine çapkirin. Jiber ku hejmara 114 di bin çapê de bûye, lê mixabin Komara Kurdistanê hatiye rûxandin. Ji aliyek din ve di kêleka rojnamê de radyo jî hatiye avakirin da ku bikare qerebûya vê derbasbûyê bikim bi vî halî jî giringiya ku di heyamê Komarê de bi rojnameya Kurdistanê re hatiye dan,serbarê deskevtên vê beşek berçav ji nûserên vê, qelema Pêşewa bi xwe bûye. Qelema rêberên Komar û rêberên partiyê ne. Taybetmendiya berçav ya wî çaxî a rojnameya Kurdistanê ev e, ku 67 sal berî niha dema li mijarên naveroka vê çi bi navê dilxwaz û çi jî bi navê rasterast ê nûserên wê dinêrî, derdikeve ku hijmara jinan kêmtir nine ji wan mêran ku qelema xwe têde xistine kar, lewma dibe em bêjin ku di dîroka bizava Kurd de û herweha di dîroka ziman û çand û edeba Kurdî de rolek berçav lîztiye. Jiyana rojnameya Kurdistan girêdayî ye bi jiyan û xebat Kurd di Kurdistana Îranê, bi PDK Îranê ve.

Dema Komara nema, avakerê Komarê wate PDK Îranê ma, lewma rojnameya Kurdistanê jî ma. Lê di her dem û rewşekê de hewil hatiye dan ku li ser piyê xwe bisekine û bimîne. Bi kêmî û yan jî bi îmkanatên despêkî be her bimîne, her eva jî bû ku piştî nemana Komarê jî li Bakûyê herçend organa komîteya nawendî a partiyê nebû, lê beşek ji wan xwendekaran ku di serdemê Komarê de bona xwendinê bo wir hatibûne şandin, karîbûn ku bi awayekê ku li vir îmkan heye, li rojnama Firqeya Demokrat a Azerbaycanê de, sê rûpelên wê bi zimanê Turkî ya Azerî û rûpelek jî bi zimanê Kurdî, lê bi naverokek hizbiyane ve çap bikin. Piştî vê û di rewşek baş de Kurdistanê hewla xwe daye ku di navxwe de, lê bi nepenî bihê belavkirin û li bajarê Tewrêzê çend jimareyek jê hatine belavkirin, lê di demek kêm de dest bi ser de hatiye girtin û ên ku kar têde dikirn digel zîndanê berbirû bûn. Lê bi vî halî jî heke derfetek kurt bona derçûna vê derketiye holê, mifah jê hatiye wergirtin da ku jiyana xwe bidomîne û pênaseya xwe biparêze.

Dom Rûpel:3'ê

Doma R:2




Di sala 1965'an de cardin li Ewropayê hewla derçûna rojnameya Kurdistanê tê dan û 26 hijmar jê tên çapkirin ku Dr. Qasimlo, Kerîm Hisamî, Kerîm Mohtedî, Dr. Marif Xeznedar rolek berçav lîstine. Li sala 1971'ê heya sala 1978'an jî 54 hejmar jê hatine çap û belavkirin û heya despêka şerê sê mehî hejmara vê digîje 60'î, û piştî vê şerî jî 9 hejmarên din jê çep û belav dibin. Hekî em li dîroka rojnameya Kurdistanê binêrin, xûya ye ku beşek zaf ji temenê xwe bi mifahwergirtin ji rewşa azad a siyasî û herweha îmkanatên nisbî derbas kiriye û beşa din a temenê xwe di çiyayên Kurdistanê de borandiye, û bi îmkanatên herî kêm hatiye çap û belavkirin. Lê di hijmara 171'an û pêve heya niha ji îmkanatên roj mifah wergirtiye". Piştî bidawîhatina axavtinên rêzdar Hesen Şerefî, rêzdar "Mihemedsalih Qadirî" endamê komîteya nawendî û yek ji avakerên rojnameya Agirî û yekem sernûserê "Agirî" basek pêşkêş kir. Rêzdarî weha dest bi axavtina xwe kir: "serbarê vê ku rojnameya Agirî di astekê de ye ku bibe têza masteriyê û bikeve ber lêkolînên akadimîk a şarezayên zimanewaniyê di zankoyan de, lê di vê simînarê de dixwazim heke bi kurti jî be çend gotineka derheq wan hewcehî û zerûretan bêjim ku avabûna rojnameya Agirî derxistin rojevê de.

Her weke hûn dizanin di dîroka Kurdistanê de bi sedema wan pîlanên ku dujmin û dagîrkerên gelê Kurd, welatê Kurdistanê parçeparçe kirin û bi sebeba hebûna olên cudacuda di nav pêkhateya civaka Kurdî de û herweha bi sedema zalkirina zimanê serdest ji aliyê dujminên gelê Kurd ve li tewahiya perçên Kurdistanê de, û bi neçarkirina xwendina bi rêziman û pîtên Farsî, Turkî û Erebî, evne bûne sedem ku di civaka Kurdistanê de jî bi sedema nebûna deshelata siyasî û pîlanên dujminên gelê Kurd, em şahidên gelek zarawe û devokên cuda cuda ne. Serbarê vê ku tevgera netewî bona lihevhatina netewî û yekîtiya zimanê Kurdî di sedsalên borî de, çi ji nav rêza tevgera şoreşvanî de û çi di nav nawendên zanistî û zimanewanî de xewna hemû xebatkarên Kurd û Kurdistanê ye.

Di rastî de mifahwergirtin ji wan dezgehên ragehandinî gehandina peyama şoreşê bûye. Hekî Komara Kurdistanê deskevta PDK Îranê bû, û rojnameya Kurdistan û dezgehên ragehandinî bi giştî bûne xwendingeha coşdana xebata netewî û bingeha perwerdekirina hizra şoreşvanî, avakirina rojnameya Agirî jî di qonaxek din de di rastî de doma heman siyasetê ye ku PDK Îranê li ser hatiye avakirin. Herwek eşkere ye xebata PDK Îranê li rojhelatê Kurdistanê û li hember rejîmên Paşatî û rejîma Komara Îslamî de, serbarê wan hemû berxwedan û goriyên hatinî dan û herweha ew pîlanên dujminan deheq gelê me de, dîsan jî nekarîbû evê pantayiya Kurdistanê û yan bîrûraya netewa kurd haydar bike. Bi liberçavgirtina vê restiyê ku li Bakûrê Kurdistanê de rêjeyek zaf ji gelê me bi tîpên Latînî û bi devoka Kurmanciya jorî diaxivin, herweha beşek ji gelê me li Başûrê Kurdistanê û li rojhelatê Kurdistanê li parêzgeha Urmiyê bi devoka Kurmancî ya jorîn dipeyvin.

Li ser bingeha vê zeruretê û bona vê ku PDK Îranê bikare dengê şoreşa gelê Kurd li Kursdistna Îranê bigehîne beşên din ên Kurdistanê û bala wan bo bûyerên Rojhelatê Kurdistanê û pîlanên Komara Îslamî derheqî gelê me encam dide bikişîne, hewcehî bi vê hebû ku ragehandinek din li kêleka ragehandinên din de ava bike bona vê yekê ku weke pira pêkvegirêdana ragehandina rojhelat Kurdistanê tevî beşên din ên Kurdistanê, li ser vê bingehê bû ku em dibînin PDK Îranê karî vê rolê bi avakirina rojnameya Agirî bi cih bîne. Di rastî de rojnameya Agirî di dehsalên borî de, kariye bi vê zaravayê û pîtên latînî bikare siyasetên PDK Îranê û bûyerên Rojhelata Kurdistanê û daxwazên vê tevgerê û herwusa bikare pîlanên dujminan di vê beşa Kurdistanê de eşekere bike. Di rastî de Îro rojê rojnameya Agirî kariye weke xwendingehekê gellek kadran perwerde bike û gellek xwendewanan ji xwe re peyda bike. Hekî pîlanê dujminên gelê Kurd derheq parçeparçekirina netewe û zimenê me de, yan weke eva me bas kirî bi vê pirrengiya di warê olî ku di civaka me de heye ji hev veqetandinekê çê bike, rojnama Agirî yan rojnameya Kurdistan û ya ragehandinên din, eva ku didomînin jihevnêzîkirin û lihevgirêdana gelê me ye di medyaya ragehandin û li medyaya kurdperwerî û şoreşvaniyê de ye. Lewma dikarim bêjim PDK Îranê bi avakirina rojnameya Agirî şanaziyek pir mezin li Rojhelatê Kurdistanê kire nisîbê xwe û, bêgoman rojnameya Agirî jî weke destexwîşika rojnameya Kurdistan û regehandinên din, di pêşerojê de bikare rolek girîngtir bilîze û bikare bibe nawendek ku gelek dezgehên din jî ava bibin".

Di beşa din ya vê simînarê de xelata rêzgirtin bi boneya bilavbûna 200'mîn hejmara rojnameya "Agirî" û 600'mîn hejmara rojnameya "Kurdistan"ê, ji aliyê rêzdar Mistefa Hicrî ve, pêşkêşî Nahîd Husênî endama komîteya nawendî û berpirsa çapemeniya PDK Îranê, û herweha birêz Şehab Xalidî berpirsê rojnameya "Agirî" hat kirin.

Di beşa dawiya simînarê de, beşdarbûyiyan boçûnên xwe derheq vê simînarê û behsên ku di simînarê de hatin kirin, anîne ziman.

## Ehmedînijad destêwerdan di hilbijartinê de qedexe kir!



Mehmûd Ehmedînijad di civîna ku tevî parêzgaran de hebû, Se'îd Mortezewî li cem xwe danîbû. Diyar nîne ku çima Mortezewî weke berpirsyarê rêkxirawa "Karûbarên Civakî" di civîna xwe ya hevbeş tevî parêzgaran de beşdarî kiribû.

Mehmûd Ehmedînijad serkomarê Îranê bi pêdagirî li ser vê ku "Dewletê helwesta xwe di hember hilbijatinê de, rohn û eşkere ragehandiye" got: " Tu kes naxwaze yan jî nikare destêwerdanê di hilbijartina xelkê de bike".

Serkomarê dewletê, hevdem di nameyekê de ji bo Xamineyî rêberê Îranê nivîsand ku "Ez û hevkarên xwe di nav dewletê de heya dawiya berpirsaryetijya xwe em girêdayî bi nirxên şoreşa Îslamî û xizmetkarê welat û xelkê xwe ne"

Di van heftiyên wê dawiyê de, hinek ji kevneparêzan têvî rexnekirina helwêstên Mehmûd Ehmedînijad bas ji li serkar vêdebirina navbirî berî û bidawîhatina fermî ya serkomariya navbirî kiribûn.

## şerê Şîe û Sûniyan di rê de ye

Mustefa Taczade kesayetiyê naskirî û endamê saziya Mucahidînên Şoreşa Îslamî, di nameyekê de bo Xamineyê rêberê Komara Îslamî de got, siyasetên Komara Îslamî li hember Sûriyê, egera şerê Şî'e û Suniyan di herêmê de zêde dike.

Navbirî di nameya xwe de bas ji deshilatên reberê Komara Îslamî dike û dibêje, di cîhana îro de, kesekî ku %70 a deshilatê di destê xwe de qorix kiribe, ji aliyê xelkê ve nahê pejirandin û sîstemên han, şibhê sîstemên Pehlewî, Mubarek, Qezafî û Esed in.

# Rewşa şoreşa kurd li rojavayê kurdistanê



Rostem Cehangîrî

Kurdên suriyê dirêjahiya dîroka xwe bi tepeserî, serkût û înkakirinê derbaz kiriye. beşek zaf ji Kurdên Sûriyê weke hevwelatî nehatine naskirin û wek mêhvan çav liwan hatiye kirin. Bi vî awayî mêhvan xwediyê ax û xwediyê malê nîne, mêhvan nikare mal û halê xwe hebe û kar û kasibî hebe û ji bo avedankirina ew xaka ku Kurd têde dijîn hewlê bide û berxwedanê bike.

Lê wek tê zanîn Kurd neteweyek resen û xwedî cih, ax û welatê xwe ye û ne mêhvan e, belkû ên ku hikmê bi ser Kurdan de dikin mêhvan, zalim û dagîrker in. Weke helbestvan dibêje, Kurd bûye bîhanî û bîhanî jî bûye xwedî mal!

Pêş destpêkirina serhildana xelkê Sûriyê, xebatkar û şoreşvanên Kurd bo demekê jî dest ji xebatê hilnegirtine û hertim li berxwdaniyê de bûne û herweha, gellek part û rêkxistinên siyasî hebûne ku hertim bona bidestveanîna azadî û nasnameya Kurdan xebat kirine û tucaran ji berxwedaniyê mandî nebûne û nesekinî ne.

Tevî hemû tekoşîn û rewabûna xebata gelê Kurd di Sûriyê de, mixabin hêj opozisyona Ereb ku li dijî dezgeha hakim li Sûriyê de şer dikin, berhev nebûye ku, Kurd wek neteweyek cuda ji neteweya Ereb nas bike û ji maf û azadiyên xwe mifahê wergire. hetaamade nine ku hebûna Kurd di Sûriyê de bi awayekê fermî qebûl bikin û mafê şarûmendiyê (hemwelatî) bûnê bidin wan. Eva şovenîzma Ereb e ku di sedsala 21'an de jî dixwaze her weke sedsalên berê riftarê tevî Kurdan bike. Wan xwe di çarçoveya teng û şovênî de ragirtine û daxwaza azadî û rizgarî ji dîktatoriya malbata Esed dikin, lê dema ku digîje ser azadî û mafên mirov û mafên neteŵî ên Kurdan, mîna dîktatorên berî xwe difikirin û tam dixwazin Kurdan tepeser û înkar bikin. Kurd dibe bi wan re bikeve diyalogê da ku careke din Sûriyeyekî nû ava bikin ku, hemû neteweyên akincî di Sûriyê de bi mafên xwe ên neteŵî û nasnameya xwe bigehin.



Mibxabin hêza Kurd serbarê vê ku mafên xwe dinase û xwe cûda ji neteweya Ereb dizane û, her tim bona bidestveanîna demokrasî û azadî û mafê mirov xebat kiriye, her wek mafê hemvelatîbûn û biratiyê bo Ereban bi rewa dizane, ew jî bo Kurdan bi rewa bizan in.

Di vir de yêkdengnebûn û bilavbûna Kurdan û herweha nebûna eniyek hevbeş ku hemû bîr û hizrên cûda ên xwe têde bibînin, hêj nediyar e. Serbarê vê yekê ku li Hewlêrê û li jêr çavdêriya Serokayetiya Herêma Kurdistanê, Encûmena Nîştimanî û Desteya Bilind a Kurdî hat avakirin lê. mixabin kursiya Kurd di nav opozisyona Sûriyê de vala ye û herweha xûya ye ku destê dewletên dagîrker ên perçên din ên Kurdistanê jî têde heye û naxwazin ku Kurd hevgirtî bin, da ku di avakirina sûriyeya nû de, Kurd bi mafê xwe yê neteŵî şad bin.

Part û rêkxistinên Kurd di Sûriyê de xwedî yek deng nine, aliyek daxwaza mafê hemwelatîbûnê dike, aliyek otonomiyê dixwaze, hindek jî daxwaza fidralî û hindek jî xweseriya demokratîk dixwazin. Bi vî rengî û bi vê çend dengiyê, dîsan jî tirsa vê yekê heye ku mafên Kurdan cardin ji bîr biçe û Kurd zirarê bike. Cardin Kurd destbetal bimîne û tepeserî û derbederî, bê welat, û malwêranî bibe mafê kurdan. Rêber û serkirdên part û rêkxistinên Kurdan, xwedî erkên dîrokî ne. Çûnkî rewşa ku niha di Sûriyê de hatiye pêş, ji bo Kurdan rewşek xasmanî ye.

Goman tê kirin ku cardin ji bo Kurdan dûcarî nebe, lewra hekî Kurd yek helwêst nebin, di pêşerojê de dîrok ji wan rêber û serkirde û partî û rêkxistinên Kurdan xweş nabe. Daxwaza me tev kurdan li her çar perçên kurdistanê û hemû kurdekê li her cihekê de ew e ku, yekgirtî û yekdeng bin û mafên Kurdan wergirin. Bibin xweşteviyê netewa xwe, da ku di pêşerojê de nifşa dahatî ya Kurdan pesna we bikin û wê wek rêberên rizgarîderê Kurdan nas bikin. Bi hêviya wê rojê ku gel bi gulên kesk û sor ên serbestiyê pêşwaziyê ji we bike û, we li hembêza xwe ya germ de xwedî bike.

## Gola Urmiyê hişk nebûye!

**Mohsên Pakayin balyozê Îranê li Komara Azerbaycanê li ser rewşa gola Urmiyê daxuyanî da.**

Pakayin derheq medyaya Azerbaycanê ku bas ji linavçûna gola Urmiyê kiribû got: Dewleta Îranê hewil da ku pêşiyê jinavçûna gola Urmiyê bigire.

Navbirî di dirêjiyê de dibêje ku, tewahiya nûçe û zaniyariyên ku tên bilavkirin nerast in û niha 19 rûbar dirêjne nav golê de û gol netinê hişik nebûye, belkî di rewşek herî baş de ye. Mohsên Pakayin di parek din a gotinên xwe de, sedemên kêmbûna ava gola Urmiyê bo kêmbûna rêjeya baranê û zêdebûna pileya germê di heyamê 25 salên borî de vegerand û herweha, nûçeya valakirina 100 gundên derdora gola Urmiyê bi nerast da zanîn û got ev gundên vala yên herêma Makûyê ne, ku seba lehî û lêmiştê hatine valakirin.

Balyozê Îranê li dirêjahiya axavtinên xwe de ragehand ku dewlata Îranê jibo pêşgirtin ji jinavçûna gola Urmiyê gelek pilan hene. Her seba vê yekê ye ku çêkirina Bendavan daye sekinandin û herweha li ser rakêşana ava çemên curbicur jibo gola Urmiyê dixebite.

## Gulen û vekirina dibistanan

Weke gellek welatan Cemaeta Gulen li Kurdistanê jî, bi taybetî li Başûrê Kurdistanê çalak e. Cemaeta Gulen ewil di sal 1994'ê de li Hewlêrê bi navê "Işık Kolejî, dibistanek vekir. Cemaetê ji sala 1994'ê heta niha bênavber karê xwe dom kir û niha li seranserê Herêma Kurdistanê bi giştî 18 dibistanên wan hene ku yek ji wan zanîngeha bi navê "Işık Üniversitesi" ye. Ligel 18 dibistanên li Herêma Kurdistanê li navend û Başûrê Îraqê 12 dibistanê Cemaeta Gulen hene. Di 18 dibistanên cemaetê de li Herêma Kurdistanê nêzîka 5 hezar xwendekar ders dibînin.

Ji bilî 17 dibistan û zanîngehekê li Herêma Kurdistanê, Radyo Devran jî heye ku bi kurdî, Tirkî û Erebî weşana nûçeyan û muzîkê dike. Di Radyo Devran de bi pirranî stranên Îbrahîm Tatlises, Mahsum Kirmizigul, û Sîbel Can tên weşandin. Navenda Devran Radyoyê li Stenbolê ye û Rêvebirê wê jî Bunyamîn Şen e. Bernameya taybet ji bo Herêma Kurdistanê spîkera li Stenbolê Fatma Gokbulut amade dike.

Herêma Kurdistanê dibistana dawî bi navê Dibistana Seretayî ya Işikê ya Taybet (Ozel Süleymaniye Işık İlkokulu) di 3'yê Çileya sala 2012'ê de li bajarê Silêmaniyê vebû. Di vekirina dibistanê de Konsolê Tirkiyeyê yê Hewlêrê Aydin Selcen jî amade bû. Ev dibistan di nava çar mehan da hat avakirin û gerînendeyê wê jî Bekir Erdag e û ew jî hevwelatiyê Tirkiyeyê ye. Li vê dibistanê 620 dersxwanên kurd hatine tomarkirin û perwerdeya bi kurdî, tirkî, îngilizî û erebî tê dayîn.

# Gotûbêjên Îmraliyê



Pêvajoya çareserkirina pirsa Kurd li Tirkiyê di bîst salên borî de bi gellek evraz û nişîvan re rûbirû bûye. Di hinek deman de rojeva çareseriya pirs Kurd li wî welatî rojên herî geş bi xwe re dîtin, lê nişka ve qonax diguherî û prosesa aştî û çarseriyê cihê xwe dida tundûtûjiyê.

Di nav dewleta Tirkiyê de nakokiyên gellek ciddî li ser çareserkiriana pirsa Kurd hene. Di dîroka nêzîk 80 salên borî yên Tirkiyê de, ji xeynî çaxê serkomariya Turkut Ozal û proseya piştî hatina AKP`ê bo ser desthilatê nebe, li wî welatî lojîka înkar û bişaftina netweyî û siyasetên nejadperestiyê li dijî Kurdan hatine meşandin.

Piştî AKP desthilat bidestve girt, hêdî hêdî pirsa kurd û pêwîstiya çareseriya vê pirsgirêkê bû rojev. Hinek pêngavên kultûrî û civakî bi sûdê Kurdan hatin avêtin, lê ev hemû têra proseya çareseriyê nekirine. Piştî ku li 15.02.1999, rêberê PKK`ê Abdullah Ocalan hat girtin, heta vê dawiyê gotûbêjek ciddî û eşkere bona çareserkirinê di rojevê de nebû. Lê di çend mehên borî de hinek liv û tevgerên nû derketin holê ku zêde baznaeya wan li Îmraliyê dizivire.

Di deh salên borî de, gellek guhertinên berçav di sîstema siyasî ya Tirkiyê de pêk hatin. Berê Tirkiye ne ew dewlet bû ku di fikra çareserkirina pirsa Kurd de be, lê rewşa siyasî ya herêmê û berxwedana şoreşgerî û sivîl a gelê kurd û hişyariya netewî li vî parçeyê Kurdistanê, rayedarên nû yên Enqereyê anîn ser vê baweriyê ku pêwîste êdî şop û stirtêjiya berê neyê şopandin. Hêza "dewleta kûr" weke dijminê aştiyê lawaz bûye, hêzên nediyar qels bûne û generalên dosyeyên "bikujên nediyar" ketine kuncn girtîgehê. Ji hemûyan giringtir jî balasa çavkaniyên aborî yên Tirkiyê pirr guheriye. Loma tenê aştî û gotubêj dikare pisgirêkên Tirkiyê çareser bike.

Wek xuya dibe, dewleta Tirkiyê heta radeyekê biryara xwe daye û ji vê rastiyê fêm kiriye ku hemû xewnên Tirkiyê bi çareserkirina pirsa Kurd re derbas dibin. Ligel ku opozîsyona navxwe bi tundî li dijî proseya aştî û gotûbêjên nû derdikeve, lê AKP îsal ciddîtir ji qonaxên berê pêvajoya gotûbêjan dişopîne.

Ligel ku di mehên dawî de hin serlêdanên giring di navbera bloka "Hikûmeta Tirkiyê, BDP û birêz Ocalan" çêbûn, û hin hevdîtin salên berê di navbera MIT`ê û PKK`ê li Oslo pêk hatin, lê bê encam bûn, PKK û BDP mîna hergav muxatebê sereke birêz Ocalan diyar dikin bona gotubêjên aştiyane û çareseriyê û muxatebê îradeya xwe ya siyasî dizanin.

Destpêkirina gotubêjan ligel birêz Ocalan piştî 14 salan, nîşaneyek eşkere ye ku dewleta Tirkiyê jî dixwaze û dizane ku bi şer û tundutûjiyê pirsgirêk çareser nabe, belkî kûrtir dibe û xelkê azadîxwaz ê kurd jî li Bakûrê Kurdistanê ji maf û xwestekên xwe paşve venagerin. Loma destpêkirina qonaxa nû ya gotubêjên rasterast û eşkere yên dewletê ligel birêz Ocalan bi mebesta çareserkirina pirsgirêka kurd, pêngavek erênî û cihê hêviyê ye. Mercê sereke eve e ku astengên ser rêya gotûbêj û proseya aştiyê ji aliyê dewletê bi taybet û aliyê kurd bên hilgirtin û pêvajo bigihîje encama pêdivî û



Azad Kurdî

## Nerîna Lîderan



**Sadiq Larîcanî**

Heke ciwanek bêje ku ez wîlayeta Feqîh naxwazim, nabe bikeve girtîgehê de, belkû divêt esla wîlayeta Feqîh jêre bê zelalkirin û wateya wê baş bizane



**Zohrê Teyibzade**

Ez dijî wê me ku jin bibe wezîr, jiber ku jin xwediyê ezmûnên heewce nine, û wezîrbûna jinê ne di berjewendiya welat de ye



**Receb Teyib Erdoxan**

Em destûrê nadin pêkhateyeke weke ya Îraqê li bakûrê Sûriyê pêk were



**Elî Ekber Salihî**

Heke hûn li rojnameyên wê serdemê binêrin, hûnê bibînin ku îro çawan dijberiya enerjiya navikî ya me dikin, wê demê jî di gel millîkirina petrol me dijberî dikirin

# Dr. Qasimlo li Urmiyê de çi got?





Moitesem Nûranî

Piştî 11'ê Reşemeya sala 1357'an ku PDK Îranê bo ragehandina xebata eşkere ya xwe, û ragehandina siyaset û helwestên xwe mîtîngek mezin li bajarê Mehabadê de pêk anîbû, biryar hate dan ku heyeta payebilind a PDKÎ li tewaya bajaran de lihev bicivin û nivîsîngeha fermî ya PDKÎ li tewaya bajaran de were avakirin.

Ez wê demê ciwan bûm, û li Urmiyê de xwendekar bûm. Roja 24'ê Reşemê bû ku heyetek payebilind a PDKÎ bi serperestiya Dr. Qasimlo hate Urmiyê û li hola Kolêja Çandiniyê ya zanîngeha Urmiyê ku li ser riya "Bend"ê bû, civînek pêk anî.

Xelkekî zaf ji jin û mêr, û pîr û ciwanan li civînê de beşdarî kirin û heta li derveyî cihê civînê de jî xelkekî zaf beşdar bibûn.

Di vê civînê de xwedê jê razî Senar Mamedî, Dr. Qasimlo rêberê gelê Kurd bi beşdaran da naskirin, û piştre Dr. Qasimlo dest bi axavtinê kir. Şehîd Dr. Qasimlo di vê civînê de got: " Piştî zêdetir ji 32 sal xebata veşartî bi xweşî ve partiya me xebata xwe ya eşkere dest pê kiriye".

Dr. Qasimlo herweha ragehand ku: "Gelê Kurd di Kurdistana Îranê, di vê dema hestiyar de ji hemû demekê zêdetir hewcehî bi alîkarî û yekîtî û biratiyê heye. Divêt em li hember tevdanîkariyên paşmayiyên rejîma paşatiyê û dujminên şoreşa Kurd pişta yektir ber nedin, û dijminên gelê Kurd bi dirêjahiya dîroka gelê Kurd bona jinavbirina şoreşa Kurd pîlan darêtine".

Dr. Qasimlo derheq demokrasiyê de got: " Demokrasî di welatê me de reh û rîşe tune ye, û divêt em hemû ji vê rewşa azad ya ku piştî hiloşîna rejîma paşatiyê pêk hatiye, hewce ye ku mifahek baş jê wergirin, û hîn bibib ku çawan demokrasiyê rêve bibin".

Navbirî derheq tepeseriya gelên Îranê ji aliyê rejîma paşatiyê de jî got: "Li dewrana rejîma paşatiyê de li raserî Îranê de tewaya gelên Îranê wek Belûç, Turkemen, Ereb, Azerî û Kurd ji tewaya mafên netewî hatibûn bêpar kirin. Dersxweandina bi zimanê wan gelan qedexe bû, pêşiya bilavbûna her cure pirtûk, kovar û rojnameyan dihate girtin, û çand û kevneşopiyên wan gelan li tehlûkeya jinavçûnê de bû, jiber ku rejîma paşayetî hewil dida ku ziman û çanda neteweya serdest bi ser gelên din de bisepîne., û siyaseta bi Farskirina gelên Îranê girtibû pêş".

Di rastî de ew gotinên Dr. Qasimlo morala xelkê Kurdistanê gihande astê herî bilind. Lewra ew axavtinên wî ên wê demê bo heta heta di guh û mejiyê min de tên û diçin û niha jî piştî derbasbûna wan hemû salan hêz û moralê bona xebatê dide min.

# Ji Urmiyê heya Sinê xwîn rijiya



Dema ku Ebdulla Ocelan serokê PKK'ê li keniyayê radestî Turkiyê hate kirin, hêrsa kurd li her çar parçên Kurdistanê pir xurt bû. Li rojhilatê kurdistanê jî pir xwenîşandan hatin li darxistin.

Di destpêkê de li bajarê Urmiyê konsolxaneya Turkiyê ji aliyê Kurdên bi hêrs ve hate şevitandin, hêzên rêjiima Îranê xelk dane ber gulleyan û çend kes şehîd û birîndarkirin, û xelkek zaf jî hatin binçavkirin. Piraniya bajarên rojhilata kurdistanê xwenîşandan kirin û ketne ber xezeba hêzên Komara Îslamî ya Îranê. Lê ya ku herî balkêş û mijara basa me ye, bajarê Sinê ye. Di roja 3'ê Reşemeyê de xelkê bajarê Sinê di demekî de ku îzna xwenîşandanê ji dezgehên ewlehiyê wergirtibûn, ketne nav bajar û bi awayek nerm ew kiryara dewletê şermizar kirin.

Lê di heman dem de xwenîşanderan siloganên dijî Komara Îslamî ya Îranê avêtin û bera hêrs û kîna xwenîşanderan kete komara Îslamî, lewra jî bi awayek hovane bûne armanca gulleyan û 13 kes hatin şehîdkirin, û hejmarek zaf jî birîndar bûn. Ev serhildana han dirêjiya karwanê xebatekî bû ku ew çend sal bû li hember Komara Îslamî de dom dikir. Di vê karwanê de bi deh hezaran kurd şehîd bibûn, gund û bajarên kurdistanê hatibûn kavilkirin, rêberên bi navûdengên wek Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî hatibûn terorkirin. Xebata sêvîl li rojhilata kurdistanê berî vê bûyerê jî bi awayên cur bi cur xwe derxistibû, li bajarê Bokanê, Pîranşehrê, û Kirmanşanê di dema şehîdbûna mela Mihemed Rebî'î, de jî meşên curbicur bi dijî siyasetên rejîma Îranê ên bi dijî Kurdan birêve biribûn. Ev serhildan encama kîn û hêrsa bi salan ya tepeserî û cînayetên rêjîma Îranê bû, li kurdistanê de, ku wek bombekî teqiya.

Ew kîna ku kurdan di dema şehîdbûna Dr. Qasimlo, Dr. Şerefkendî, û şehîdên din ên riya rizgariya Kurdistanê, nekarîbûn eşkere bikin, di dema meşa mehkûmiyeta radestkirina Ocelan de, derfetek dest bi dest xistin û ew rêjîme mehkûm kirin. Cihê xwe de ye ku di gel bîranîna şehîdên meşa li Urmiyê û serhildana 3'ê Reşemeya Sinê, em silavan li rêkxerên wan meşên nerazîbûnê bikin û bêjne wan ku we bi vê meşa xwe selimand ku hûn ji her derfetekê mifahê werdigrin bona vê ku dengê xwe bi dijî deshilatê bilind bikin, lewra hûn ji Urmiyê heya Sinê qehremanê gelê Kurd in.



Kavûs Ezîzî

Arif Vêlzî



# Îran şerê mesebî geş dike




Qonaxa yekem a zêdebûna aloziyên di navbera Şî'e û Suniya, di çend dehikên derbazbûyî li Rojhelata Navîn de, vedigere ser şoreşa gelên Îranê û hatineserkara deshilata Şî'e di vî welatî de. Çûnkû nêrîna îdeolojîk a Xumeynî û hevhizrên wê derheq Şî'e û serdestiya meseba Şî'e di Îranê de, di despêkê de bûye bingeha siyaseta navxwe û Suniyên Îranê xist ber xezeb û zexta xwe û bi hemû awayekî ji deshelata siyasî a welat hatin bêparkirin, piştre bû sedema vê yekê ku siyaseta derve ya xwe li ser bingeha teoriya Xumeynî, wate teoriya "şandina Şoreşê" ku heman siyaseta destxistine nav karûbarên welatên din e, bê darêtin.

Faza dûhemîn a zêdebûna girjî û aloziyên navbera Şî'e û Suniyan, vedigere bo dema êrîşa Amerîkayê bo ser Îraqê ku di encam de Şî'eyan bi piştevanî û nifûza Komara Îslam di Îraqê de, karî ku deshelata siyasî di Îraqê de bigirin destê xwe û Suniyan bi tewahî bixin perawêzê de. Eva bû bi despêka rikeberiya tayifî û mshebî di welatê Îraqê de.

Rikeberiya ku piştî derbazbûna deh salan bi ser hilweşandina deshelata Sedam Husên û hatineserkara Şî'eyan di Îraqê de, hêj her dom dike û xelkê Îraqê goriyan jê re didin. Fazeke din a destêweradan û tevdanîkarî a Komara Îslamî vedigere bo terora serokwezîrê Sune meseb ê Lubnanê, wate Refîq Herîrî di sala 2005'an de. Bi terora Refîq Herîrî rewşa siyasî a Lubnanê jî têk çû.

Şî'eyên Lubnanê bi pêştevaniya tevalî a Komara Îslamî û bi rêberiya Hizbulla ku ji aliyê Komara Îslamî ve hatibû avakirin, karîn bi lihevhatinekê digel hindek aliyên din ên Lubnanê deshelata siyasî di vî welatî de bigirin destê xwe û bi vî awayî, hem nakokiyên di navbera Şî'e û Suniyan di Lubnanê de ber bi zêdebûnê çû û hem jî pêgeh û nifûza Komara Îslamî di herêmê de bihêztir bû.

Ji aliyek din ve dema ku bahoza guhertinê di herêmê de yek li du yek koşka zorda û dîktatoran diherifand û bi giştî herêm ber bi demokrasiyê ve diçû, Komara Îslamî bi siyaseta dualî a xwe, ji aliyekê piştevaniya Şî'e di welatên Behryn, Yemen, Erebistan û welatên din ên Kendavê de dikir û ji aliyek din ve, piştewaniya Elewiyên deshelatdar di Sûriyê de dike ku kêmaniya hêşîmeta vî welatî pêk tînin.

Rast e ew siyaseta dualî a Komara Îslamî di gel welatan de bi ser neket, lê piştevaniya tevalî ji Beşar Esed bû sedema şerê navxwe. Heta di çend rojên derbazbûyî de Mistefa Taczade endamê nawendi ê du partiyên "Sazimana Cibheya Muşariket" û " Sazimana Mucahidîn a Komara Îslamî" , di nameyek vekirî de bo Xamineyî reberê Komara Îslamî nivîsandibû ku; " Egera vê yekê heye ku destêwerdanên Komara Îslamî di karûbarên navxwe ên Sûriyê bibe sedema serhildana şer di navbera Şî'e û Suniyan vî welatî de".

Herweha piştevaniya ji Beşar Esed weke xetaya herî mezin a rêberê Komara Îslamî di du salên derbazbûyî de da zanîn û di doma gotinên xwe de dibêje; "weha xûya dike ku pêvajoya han (piştevanî ji Beşar Esed) vî şerî ber bi welatên Lubnan û Îraqê jî veghêze.

Bi giştî eva ku cihê nîgeraniyê ye rewşa aloz a Rojhelata Navîn bi giştî û Sûriyê bi taybetî ye, çûnkî destêwerdanên Komara Îslamî bi merema têkdana rewşa ewlehiya herêmê û hevdem parastina "Hilala Şî'î" û hêz û bandora xwe di navçê de, ber bi şerek dijwar di navbera hêzên Şî'e û Suniyan ve diçe.

Bê goman di rewşek weha de gorî û xisarên zaf ên tevalî jê dikeve û Komara Îslamî a Îranê jî berpirsyarê serek ê wan tevdanîkariya ne.

## Erdoxan bi tundî hate rexne kirin

Amerîka, Îsraîl û sekretêrê giştî yê NY, bi awayeke tund rexne li serokwezîrê Turkiyê, Receb Teyîb Erdoxan girtin, ji ber ku Erdoxsan Sehyonîsm wek cînayeta bi dijî mirovatiyê hesibandibû. Serokwezîrê Turkiyê di civîna yek ji nawendên rêkxirawa neteweyên yekbûy di Viyenê de gotibû "wek Sehyonîzm, dijatiya bi cihûyan re, û wek faşîzmê, em dikarin tirsa ji Îslamê jî wek cinayet bi dijî mrovatiyê bihesibînin. Binyamîn Netanyaho serokwezîrê Îsraîlê, gotinên Erdoxan mehkûm kirin.

Cankêrî, wezîrê derveyî Amerîka, gotinên serokwezîrê Turkiyê wek şaşiyek mezin hesiban. Bankîmon sekretêrê NY, gotinên serokwezîrê Turkiyê cihê nigeraniyê û bi zirar û sedemek ji bo serhildana nakokiyan da zanîn.

## Rojev

## Hewlek ku morala Îsraîlê bilind dike

Selîm Zencîrî

Hevdem li gel birêveçûna gera nû ya gotûbêjên bêencame navikî ên Îranê bi gurûpa 5+1 li Almatî a Qezaqistanê de, du hewlên din bona givaştina zêdetir a rejîma Komara Îslamî a Îranê ketin rojeva siyasî a Amerîkayê ku li egera pesend bûna wan de xeterek mezin rastî rejîmê tê.

Yekem, hewildana hin endamên kongirêsa Amerîkayê ye ku ji riya givaşên xwe li ser Wezareta Karên Derve ya USA, dixwazin navê Sipaha Pasadaran a Îranê bikeve nava rîzbenda gurûpên terorîstî de. Endamên Komîteya Karûbarên Derve li Civata Nûnerên Amerîkayê de tevî mehkûmkirina çalakiyên Sipaha Pasdaran, ji Wezîrê Derve xwastin ku helwesta xwe li dor cihdana navê Sipahê li vê rîzbendiyê de zelal bike.

Ji hêla din ve hejmarek ji endamên Meclîsa SENA a Amerîkayê bi serperestiya Robêrt Mînindîz, serokê komîteya kar û barên derve ya SENAT'ê reşnivîsa yasayekê amade kirine ku li egera pejirandina wê de, Amerîkayê neçar dike li egera êrîşa leşkirî a Îsraîlê bo ser Îranê, li hemû warên aborî, dîplomatîk û leşkirî de alîkariya Îsraîlê bike. Senatorê Komarîxwaz, Lîndsî Girîm ku yek ji amadekarên wê gelaleyê ye ragihandiye ku " kes xwaziyarê şer û kêşe li tu cihê cîhanê de nine, lê em naxwazin bibînin ku Îran gihaye bomba Etom".

Her du hewlên han dikare metirsiyek mezin be bo ser rejîmê Îranê. Ji berku cihgirtina navê Sipahê li rîzbenda gurûpên terorîstî de wê gelek sînoran bo Sipahê, endamên wê û rêxistin û torên jêr çavdêriya wê de pêk bîne.

Hewla din jî ku li egera pesendbûnê de piştevaniya Amerîkayê ji Îsraîlê bona êrîşa ser Îranê garantî dike, dikare moral û lezgîniyê bide bîroke û vebijêrka şer ku mêjdeme Îsraîlê ragihandiye bona parastina xwe dê wî karî bike. Ji ber ku ew li ser wê baweriyê ne ku baykot û got û bêj li ser Îranê bêencam in û nabine sedem ku pirograma navikî a Îranê bisekine. Jiberku ceribînên navikî ên Koreya Bakûr nimûneyek eşkere ji şikesta dîplomasiyê bona sekinandina pirogramek navikî ne. Berê jî Natanyaho ragihandibû ku kopika sebra wan heya dawiya Buhar û Hawîna sala 2013'an e û ger got û bêj bersivder nebin û nekarin şemendefira navikî a rejîmê bisekinînin, vê êrîşa Îranê bê kirin. Lê em dibînin ku nêzîk bi dehsalekê ye ku Komara Îslamî a Îranê bi taktîkên cur bicur kariye rojava bixapîne û demê jî bi qazanca xwe bikuje û asta metirsiya xwe jî zêde bike.



Hemexan Musa'dî kurê Lotfulla, sala 1331'an li bajarê Nodşê, hatiye dinê. Navbirî bi sedema destengiya malbata xwe, her di destpêka zarokatiya xwe de nekariye here xwendingehê, lewra karê wî di zarokatiyê de baxevanî bûye.

Hevpeyvîn:Faxir Molûdî

Hemexan despêka nasîna PDK Îranê weha tîne ziman; "Demsala Buharê bû û ez ji riftarên birayê xwe "Heme Emîn" bi goman bûm, lê min nedizanî ku çi dike. Rojekê birayê min ez gazî kirim û got; here vê navûnîşanê û pênc Tûmen dirav ji xwediyê malê wergir, wî çaxî min zanî ku birayê min endamê PDK Îranê ye û abûneyên hizbî kom dike, lewra ji rêya birayê xwe û endamek din ê partiyê bi navê "Derwêş Xaliq Fetahî" ve, ez digel PDK Îranê nasyar bûm.

Dema ku min nûçeya şehîdkirina Dr. Qasimlo bihîst, min got Kurdistan, pêşmerge û azadî, hemû bê wate man, û hizba min û welatê min bê xwedî man

Hemexan Musa'dî tevlîbûna xwe bi PDK Îranê re weha tîne ziman; "Sala 1357'ê dema şoreşa gelên Îranê dest pêkir, tu binkeyên PDK Îranê li devera me nebûn. Bi tenê rêkxirawek hizbê hebû ku bi awayek eşkere karê hizbê dikirin, piştî mideheki baregeha PDK Îranê li gundê "Nerwî" û di nav baxekê de hat avakirin, mn gelek caran seredana baregeha partiyê kir û daxwaz dikir ku weke pêşmerge bême wergirtin, lê ez wernedigirtim. Cara dawiyê di Buhara sala 1358'an de, min seredana baregeha partiyê li gundê Nerwiyê kir û çûm bal "Kak Se'îd Kal Kal" ku wî çaxî berpirsê baregeha PDK Îranê bû. Navbirî seba vê ku di malbata me de pênc pêşmerge hebûn daxwaz ji min kir ku vegerim mala xwe, lê bi sedema pêdagiriya min, bi awayek fermî weke pêşmerge hatim wergirtin û yekemîn karê ku partiyê bi min sipart, karê nobedarî bû.

Hemexan Musa'dî derheq rojên xweş û nexweş ên jiyana xwe weha me re peyivî; "Şerê navbera Îran û Îraqê gerim bû, cardin Hewraman bi giştî ketibû destê hêzên Komara Îslamî û hevdem dewleta Îraqê bi çekên kîmyayî bajarê Helebçê topbaran kiribû, pêşmergên Melbenda yek, Melbenda du û hêza Şaho ku bi giştî hijmara me digihişt 900 kesî, ji şer û kîmyabaranê rizgar bûn. Li Zereyanê Dr.Qasimlo hat pêşwaziya me û di civînek mezin de ragehand ku, ez şanaziyê dikim ku peşmerge û malbatên partiyê bi vî awayî rizgar bûn. Herweha min tu cara Dr.Qasimlo nedîtibû, dîtina wî bo min hêviyek pir mezin bû, em bona karê partiyê çûne binkeya Deftera Siyasê li "Gewre Dê", min li wir Dr.Qasimlo ji nêzîk ve dît û ez çûm xizmeta wî û min karî destê wî bigirim û ramûsim, Dr.Qasimlo ji min re got; "Ramûsana dest ne karê me ye, tu ferq û cudahiyek di navbera min u te de nine û em her du weke hev însan û şoreşgêr in, lewma dibe riftarên han di nav me de nemînin. Eva rojên herî xweş ên jiyana min in".

Di hember de roja pir nexweş a jiyana min vedigere bo roja şehîdketina rêberê gelê Kurd Dr.Qasimlo. Sala 1368'ê ez li baregeha partiyê li Qislanê Bûm, xeber dan me ku Dr.Qasimlo birîndar ketiye, lê piştre RDK Îranê di demjimêr 12'ê nîvro de nûçeya şehîdketina Dr. Qasimlo ragehand. Dema ku min nûçeya han bihîst, min qêrîn kir û min got; "Kurdistan û pêşmerge û azadî bê wate man û partî û welatê min jî bê serperest ketin".

Hemexan Musa'dî dibêje; "Şehîd ketina Dr.Qasimlo û Birayê min tevî kurê xwe di nava refên PDK Îranê de, pir bandor xistin ser min ku ez dest ji hizbatiyê bikişînim, lê dema ku gotinên şehîd Qasimlo tên bîra min ku digot em dibe rêya şehîdan bidomînin, cardin ji helwêsta xwe poşman dibim û cardin dilgermî hizbatiyê dibim".



Hemexan derheq kadr û pêşmergên partiyê dibêje; "Kadr û pêşmergên partiyê divêt xwedî nezm û disiplîn bin, dilsoz bin û karê hizbî bê dudilî cîbicî bikin, herweha xwedî riftarên baş bin û di cihê xwe de rexne gir jî bin.

Hemexan Musa'dî rû li xelkê Kurdistanê dike û daxwaz dike ku, hevkariya partiyê bikin û zêdetir xwe digel berneme û siyasetên partiyê rêk bixin. Herweha daxwazê ji xortên Kurdistanê dike ku bi hatina xwe refên partiyê bihêztir bikin da ku em jî, bikarin bi azadî vegerin welatê xwe".

Hemexan dibêje; "Daxwaza min ji PDK Îranê weke pêşmergeyek dêrîn ewe ku, bi sedema vê yekê ku min û pêşmergeyên weke min tewahiya jiyna xwe li ser PDK Îranê danîne, partiya me zêdetir ji berê rêz û hurmetê ji pêşmergên kevnar bigire. Çûnkî bi sedema pîriyê di gel nesaxiyê curbicur berbirû bûne, lewma hewce ye ku bona baştirbûna wan, xizmetek baştir bi wan bê kirin.



Heme Xan Musa'dî pêşmergê PDKÎ

## Yek milyon heya yek milyon û sêsed hezar kes mo'tad di Îranê de hene



Fermandeyê polîsê Tehranê ragehand ku di Îranê de yek milyon heya yek milyon û sêsed hezar kes mo'tadê fermî û 200 kes jî Elkolî ne, nêzîkî 700 hezar kes jî bo xwe mijûlkirinê madeyên hişber bikar tînin. Li gor amara nawenda xebat bi dijî madeyê hişber di Îranê de hersal 600 ton madeyên hişber di Îranê de tê bikaranîn. Cîgirê nawenda xebat bi dijî madeyên hişber li Îranê di meha Rêbendanê de gotibû ku bi awayeke navincî hersal 400 hezar û 200 kes bi sedema bikaranîna zêde ya madên hişber di Îranê de canê xwe ji dest didin. Tiryak, Kirak, Şîşe û Hîroyîn zaftirîn madên hişber in ku di Îranê de tên bikar anîn.

## %140 nirxê kalayan di Îranê de zêde bûye

Bîjen Dawûdî Cêgirê fermandarê Birûcêrdê ragehand ku, ji Pûşpera îsal heya niha nirxa hindek kalayan di bazara Birûcêrdê de %140 ber bi zêdebûnê ve çûye, û herweha hêvî xwest ku berpirsyarên hikumetî û ên Birûcêrdê, bona nemana kirîza han, pêdeçûnê bi ser nirxa kala di bazaran de bikin.

Bîjen Dawûdî herweha ragehand ku dibe di despêka sala dahatî de nirxa kalayan di bazaran de kontrol bikin, jiber ku niha bi sedema cihgirnebûna nirxan, kirîz û bêserûberiyek bê qas di bazaran de hene.



# kuştina kolberên Kurd cînayet e

Nasir Salihîesil

Di welatên pêşkevtî û demokrat de, birêveberên welat erkê wan ew e ku rewşa hewce bo bijêv û jiyana civakê pêk bînin û di vî warî de rewşa dabînkirina kar bo tewaya tex û qatên welat berhev bikin. Di wan welatan de birêveberên welat derheq debara jiyana xelkê de bersivder in, û li gorî îmkanat û şiyanên xwe hewil dane. Lê di welatê me de herçend bi awayek xwezayî xwediyê gellek çavkaniyên jêeerdî, bi taybet neft û gazê û çavkaniyên mirovî ye, lê kêrnehatîbûna birêveberên rejîma Îranê bûye sedema vê ku serbarê pitansiyeleke xwezayî û mirovî bi milyonan kesî bê kar in. Xelkê hejar û kêmdahat di welateke xwedî enirjî wek Îranê de neçar in ku bo peyda kirina bijêva jiyana xwe dest bo her cure karekî ku heta dahateke nemir p nejî jî hebe bibe.



Herçend ku li tewaya herêmên Îranê de bêkarî û kêmdahatî heye, lê jiberku rejîma Îranê neteweya Kurd li Kurdistana Îranê de bi dijî xwe zanî ye, lewra bêkarî çend hember zêdetir e, jiber ku sermayedanîna serane li Kurdistanê de kêmtir ji 300 hezar tûmenî ye, eva di demekê de ye ku ew hejmar li nawenda Îranê de zêdetir ji yek milyon û 500 hezar tûmen e. Lewra komara Îslamî her tim di warê dabînkirina kargeh û karxaneyên pîşesazî û pêkanîna rewşa kar de kêmtirxemî kiriye. Heta pêşiya kar û kasibiya xelkê kêmdahat ku bi sedema rewş û hilkevta coxrafiyayî li ser sînorên Kurdistana Îran û Îraqê de dijîn pêşgîrî dike. Lewra rejîma Îranê di vê derheqê de li siyaseta bêkarî û hejarî wek karteke zaxt û givaşê bi kar tîne bonavê ku xelkê neçar bike bona peyda kirina bijêva jiyana xwe rû li organên tepeserkar ên Besîc û Îtilaatê bikin. Lê xelkê zehmetkêş ên kurdistanê li hember vê siyaseta rejîma Îranê de riya pirr ji tirs ya kolberiya li ser sînoran hilbijartine û ji vê riyê ve pariyek nan bo jin û zarokên xwe peyda dikin. Gulleberdana rasterast ya hêzên rejîma Îranê û ketine li ser mînên çandî, û sirrêbirina kolberan û herweha diyardeyeke nû ya hêzên rejîmê wate girêdana dest û piyê kasibkaran û avêtina wan ji bilindahiyan, ew tehlûkeya nû ye ku kolberên kurd pêre berbirû dibin. Li gorî serjimêriya ku malpera Kurdistan media bilav kiriye, di heyamê mehên Sermawez, Befranbar û Rêbendana evsal de 25 kasibkarên Kurd bi gulleyên rasterast ên hêzên çekdar ên rejîma Îranê yan jî bi ketina li ser mînên çandî li herêmên sînorî yan hatine kuştin, yan jî birîndar bûne.

Ya ku cihê baldanê ye ew e ku li gorî madeya 7 ya bikaranîna çekê ji aliyê hêzên çekdar ên rejîma Îranê ve hatiye, ku divêt pêştir kesê bergoman yan tawanbar bê agehdarkirin, û heke ew yek bê encam ma bo carek din gulle bi awayek hewayî bi ser de bêne reşandin, û heke xwe radest nekir ji navtengê ber bi xwartir lê bidin, û di vê demê de jî divêt tanê gullê li lingan bê dan. Lê her wek hate baskirin hêzên rejîma Îranê rast bi armanca kuştinê gulleyan bi ser kolberên Kurd de direşînin, û tu carî jî lêpirsîn li wan nahê kirin, belkû biryarder û bikuj destxweşî ji wan tê kirin. Lewra ew şêwe kuştina xelkê sivîl diçe xaneya cînayeta bi dijî mirovahiyê. Herweha li gorî yasaya cezayên Îslamî ên Komara Îslamî, li benda "A" ya madeya 2, ya yasaya qaçaxa kalayan de hatiye: " Heke kalayek kêmtir ji yek milyon tûmen buhayê wê be, ew yek nakeve xaneya kalayên qaçax de, û ceza jêre nîne". Lê hêzên rejîmê heta xwediyê wan kalayan ku kalayên wan bi nirxê kêmtir ji 500 hezar tûmenî jî be, dikujin, lê axazade, fermanderên sipaha Pasdaran û Wezareta Îtilaat û karbidestên payebilind ên wan bi mifahwergirtina xirap ji berpirsayetiyên xwe bi awayekî berfireh li sînorên avî û hişkatî û bi awayên veşartî mijûlî qaçaxa kalayan bo navxwe ya Îranê ne, û guh nadne wan yasayên pêwendîdar bi qaçaxa kalayan.

Gelo hêzên çekdar ên ku kolberên kurd dikujin çima wan ceza nakin. Lewra kuştina kolberên Kurd cînayetek dijî mirovî ye û erkê li ser milê tewaya kom û kom û civatên navneteweyî li raserî cîhanê de ye ku wan siyasetên dijî mirovî eşkere bikin û naweroka cînayetkarane ya vê rejîmê bo raya giştî a cîhanê eşkere bikin.



Şehab Xalidî

# Bê azadiya ziman welat demokratîze nabe

Sepandina zimanekê bi navê zimanê fermî bi ser neteweyên cuda cuda ên Îranê de û neçarkirina wan bi xwendin û nivîsandin, û derxistina hêz û şiyanên xwe bi zimaneke cuda ji zimanê dayîkê, mirov dikare wek zulma herî mezin ya rejîma Îranê, derheq wan neteweyan û meztirîn asteng li ser riya bihevre jiyana aştiyane û demokratîzekirina wan welatan bi nav bike, jiber ku tu zimanek nikare xwedî û hilgirê pasaw û hêcetên hiqûqî be bona zal bûna bi ser zimanên din de, û tewaya takên civakê xwediyê mafê wekhev bi taybetî di warê bikaranîna zimanê dayîkê ne.

Lê mixabin neteweyên belengaz ên Îranê evsal jî roja cîhanî ya zimanê dayîkê di rewşekê de derbas kirin, ku ne tenê rejîma Îranê ew benda 15'ê ya yasaya bingehîn ku bixwe jî pesend kirine, piraktîze nekiriye, belkû hewlên sîstematîk ên wan bo helandina ziman û kultura neteweyan di nav yek ziman û kulturî de berdewam e, û ew hewlên bi vî rengî di sedsala 21'ê de, ew qasê kevneperestî û deshilatxwazî û di hemen demê de tirsa wan ji geşekirina zimanên cuda ji zimanê bi fermîkirî, nîşan dide.

Ew tirsa rejîmê ji geşekirina zimanê neteweyên nîştecî di Îranê de, di demekê de ye ku di welatek wek Hindustanê de nozde zimanên bi fermîkirî û li Afrîqaya Başûr yazde zimanên fermî hene, û ew hemû zimanên fermî bi tu awayî ne tenê nebûne sedema dabeşkirina xaka wan welatan, belkû bûne sedema geşekirina zêdetir ya wan welatan di warê çandî, û hest bi berpirsayetîkirina zêdetir ya hemwelatiyan.

Herweha ew rejîma di demekê de dixwaze berdewam be li ser helandina ziman û kultura neteweyên nîşteciyê Îranê di nav yek ziman û kulturî de, ku li jêr sîbera wan hemû rojname û kovar û malperên înternêtî û radyo û TV'yan, wate li serdemê bi cîhanîbûnê de, êdî ew xeyal û dolabên wan pûç û bê bandor bûne, û nikarin bi binpêkirina benda 30'î ya biryaranameya pesendkirî ya NY, û herweha benda 15'ê ya yasaya bingehîn pêşiya lehiya zanyariyan, û wan hemû peyvên rengîn bigrin.

Lê dîsan jî hewce ye ku gelê Kurd û tewaya neteweyên bê maf ên Îranê her sal roja 21'ê Şibatê bikne roja bilind-



kirina dengê nerazîbûna xwe li hember siyasetên dujminkarane ên rejîmê, û ji vê ratsiyê têbigîjin ku nuqteya herî bihêz û hevpar bo yekgirtina wan li hemberî vê rejîmê de, nuqteya pirsa zimanê dayîkê ye. Heya ku kombûna li dewra vê nûqteya hevpar pirreng û bazeya vê berfirehtir be, dikare ew qas jî rejîmê bêxe tengasiyê de û ber bi lawaziyeke zêdetir ve bibe.

# Navendên Ewlekariyê li Weşanxaneyên Urmiyê Sîxoriyê Dikin



Îdareya Îtilata bajarê Urmiyê bi armanca naskirina çalakên ferhengî û çavidêriya weşanxaneyan, alavên sîxoriyê di weşanxaneyên Urmiyê de damezirandine.

Li gor nûçeya ajansa nûçegihaniya kurdpa, heyamê çend mehan e ku Îdareya Îtilata bajarê Urmiyê bi armanca nasîna çalakên çandî û kuntrolkirina weşanxaneyên bajar,li hemû navend û weşanxaneyan alavên sîxoriyê danîne.

Yek ji xwediyên weşanxaneyan li bajarê Urmiyê bi ajansa nûçegihaniya Kurdpa ragehand: Çapkirina birûşûr û kovaran ji aliyê Îdareya Îtilatê ve tê kuntrol û çavdêrîkirin. Xwediyê weşanxaneyê basê vê yekê jî kir,karê han heyamêend mehane ji aliyê Îdareya Îtilatê ve dest pêkiriye û armanca wan jî naskirina çalakên çandî, sivîl û rojnamenivîsên bajarê Urmiyê ye.

Berê jî Îdareya Îtilata bajarê Urmiyê di Kafînêtên bajarê Urmiyê bi aramanca kuntrolkirina karûbarên întêrnêtî,çend alavên taybet bi sîxoriyê li ser kompiyotêran damezirandibûn.

# Gotinên Pêşînan



Ar ji kesê nezan re bar e :
Ar, tê wateya heya an namûs û fedîyê,ji ber wê yekê ev gotin jî tê wateya ku mirovên nezan nizane namûs çiye an fedî çiye û li kîjan deverê xuya dibe.

Aşê dîna bê av digere :
Aşê dînan an serê wan ,bê av an bê mejî digere. Heke mejiyên wan hebûya an wekî yê mirovên din asayî bixebitîya ji wan jî re dîn nedihat gotin.

Aşiq birçî dibin qala nanê dawetan dikin:
Carinan ku mirov di dilê xwe de tiştekî bixwaze, lê belê rasterast mirov qala wî tiştî neke ,ya jî mirov tim qala wî tiştî bike .Mînak ku dilê yekî hebe xaniyekî çê bike,bi wê ramanê her tim di civatan de behsa xaniyan bike û ew li ser bala wî be.

Av di golê de bimîne wê genî bibe:
Divê hertişt di dema xwe de bê bikaranîn.Dema ku pêvist be divê bê bikaranîn.ku dema wî tiştî derbasbibe rûmeta wî jî namîne. Dîsa her tişt di dema xwe de hê xweş çareser dibe. Tiştin hene ku mirov di dema wî de dest navêjê wateya wî û çareserkirina wî dijwartir dibe.

Av heta girav nebe zelal nabe:
Dema bûyerên mezin çêdibin mirov hê nû li çareseriyê digerin,dîsa berî ku tevlihevî çêbibe mirov bi hişekî rast nafikire lê dema giravî (tevlihev)çêdibe û jiyana herkesî dibin bandora wê bûyer de dimîne wê demê herkes dixwaze çareserî çêbibe û di wî warî de hewl dide..

# ŞARISTANA SONQORÊ

Şaristana Sonqorê yek ji şaristanên Parêzgeha Kurd akincî ya Kirmanşanê ye. Sonqor li 85 kîlomêtriya bajarê Kirmanşanê cih girtiye û cihek sitratijîk e.Gelê herêmê hemû kurd û bi zaravê Kelhurî dipeyvin. Derbarê navê Sonqirê de bîr û ra zaf in û her kes vî navî vedigerîne ser bûyerekê. Hin kes dibêjin ku Sonqir navê çûkekê ye û ew nav, navekî Erebî ye. Hin kes jî dibêjin ku Sonqor navekî Kurdî ye ku bi derbazbûna demê hatiye guhurîn. Li serdemê deshilatdariya Sefeviyan Sonqor parek ji herêma Esed Abad a Hemedanê bûye. Ev yek dide xuyakirin ku herêm bi dirêjahiya dîrokê Kurdakincî bûye û li cem paytexta Madan cih girtiye. Kurdên herêmê piranî werzêr û terşdar in û bi karê çandiniyê re mjiûl in. Şaristana Sonqorê di deştekî pan û berîn de û derdora bajêr bi şînkatî, bax û daristanan hatiye xemilandin. Li herêma Sonqorê çiyayên Madiyan Kuh, Kemer Zer, Buswar û gelek çiyayên din cih girtine ku heya dawiya Buharê bi befrê têne dapoşîn. Herêma Sonqorê ji navçeyên Serab, Filegerî, Kilyayî,Kiyunanat û Farsinc pêk tê û herêm bi tevahî, herêmek çiyayî ye. Bajarê Sonqorê navenda şaristanê ye.

Li çiyayên herêmê de gelek cûrên ajelan wek: Rovî, gur, hirç, mamiz, kev, Mar û...hwd dijîn. Herwisa li wan çiyayên serkeş de gellek giyayên dermanî û yên xwarinê wek: Kerkul, Korad, Rêvas, luşê û ...hwd hene ku gelê herêmê di demsala buharê ji bo xwarinê û dabînkirina risqê mala xwe mifahê ji wan giyayan werdigrin. Kurdên Sonqorê di welatparêziyê de gelekî xwedî nav û deng in û li vê herêmê gelek hunermend û rewşenbîr û nivîskarên mezin hilkevtine. Ew welatparêzî mixabin ji bo Kurdan û Sonqoriyan bê zirar nebûye, û rejîmê hewil daye bi her wawyî ku ji desta tê, xelkê wir tepeser û bêdeng bike. Serbarî vê yekê ku Kurdên Sonqorê hemû Şîe ne, lê dîsan rejîma Îranê hitbarê bi wan nake û hertim di hewla tepeserkirina Kurdan de ye. Li nava bajarê Sonqorê de sazî û rêkxistinên civaka sivîl tuninin, û rejîm îzna çalakiyên hunerî û çandî bi kurdên herêmê nade, û bi hemû awayekê dixwaze wan ji nasnameya wan a kurdistanî dûr bixe. Siyaseta dewletê li herêmê û çênekirina Fabrîka û derfetên kar bûye sebeb ku li herêmê de bêkarî bi qasekî zor berçav hebe û piraniya ciwanan bêkar bin. Ew siyaset di demekê de ye ku parêzgeha Kirmaşanê piştî parêzgeha Xûzistanê duyemîn parêzgeha Îranê li warê hebûna petrol û gazê de ye û li herêmê de çavkaniyên bin erdî yên gelek baş hene. Serbarî wan hemû zext û givaşên dewleta Îranê, Kurdên Sonqorê bi awayek micid li hewla parastina nasnameya xwe a Kurdistanî ne û di rêya han de gelek qurbanî û bedîl pêşkeşî xaka Kurdistanê kirine.



A:Mecîd Rajanî




Rejîm îzna çalakiyên hunerî û çandî bi kurdên herêmê nade, û bi hemû awayekê dixwaze wan ji nasnameya wan a kurdistanî dûr bixe.

# Îran di warê enfilasyonê de li herêmê de yekemîn e



**Nawenda lêkolîna parlemênta Komara Îslamî ya Îranê di raporekê de eşkere kir ku, Îran li ser asta herêmê pileya yekemîn û li ser atsa cîhanê jî pileya şeşemîn di warê enfilasyonê de bidest anî.** Di raporê de rîzbenda welatên ku di sala 2012'an de xwediyê enfiloasyona herî zaf di cîhanê de bûne hatiye, û li gor vê rîzbendê welatên Bilarûs, Êtyûpî, Vênzoêla, Oganda, Sûdan, Komara Îslamiya Îranê, Tanzaniya, Komara Yemen, Gîne, Moxolistan, Komara Teymûra Rojhelat û Uzbekistan di pileya yekem hey 12'ê de ne. Komara Îslamî a Îranê bi nirxa enfilasyona %8.21 di pilaya şeşemîn a cîhanê de ye. Herweha di rîzbenda welatên herêmê de jî Komara Îslamî pileya yekemîn di warê enfilasyonê de bi dest anî.

# AGIRÎ




Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Tel: (+)9647503640792

## Pirtûka “Jinek Ewropî li Welatê Kurdan”, hate weşandin

**Pirtûka bi nave “Jineke Ewropî li Welatê Kurdan” ku bîranînên “Hêlên Kirulîç” naskirî bi Nesirîn Qasimlo, hevjîna Dr. Ebdulrehman Qasimlo ye, hat çap û bilavkirin.**

Nesirîn Qasimlo di vê pirtûka xwe de, bas ji bîranînên xwe ên li çiyayên Kurdistanê, û xebata azadîxwaziya gelê Kurd dike.

Ew Pirtûk ji aliyê “Nîhat Nuyan” ve ji zimanê Firansî ve bo ser zimanê Tirkî hatiye wergêrandin.




Hêlêne Kirulîç xelkê Çikoslivakiya berê ye, û di salên 60’î de, dema ku di gel Dr. Qasimlo di zanîngehê de nasyar bibû, bi hevre jiyana hevbeş pêk anîbûn.

## Navê eyaletek Amerîkayê bi “Kurdistana Biçûk” tê guherîn

Rojnameya “The Washington Times” ragehand ku, ji ber zêdebûna hejmara Kurdan li eyaleta “Nasville” a Amerîkayê de, ji niha şûnde navê vê eyaletê bi “Kurdistana Biçûk” tê goherîn..

Hejmara Kurdên vê eyalet roj bi roj zêdetir dibe, lewra di nava gelê Amrîkayê de navê “Nasville” êdî zêdetir bi navê Kurdistana Biçûk tê binavkirin.

Li gor zanyariyan di pêşarojê de çê dibe ku bi awayek fermî navê “Nasville” biguhere û bibe “Kurdistana Biçûk”.




## Wî xwe jî Kurdbûnê veşartiye



“Zafer Çaglayan”, Wezîrê aboriya Tirkiyê ragehand ku ez Kurd im. Çaglayan di daxuyaniyeke de dibêje, “Bi salan min Kurdbûna xwe veşart û min nedikarî bêjim ku ez Kurd im.”

Wezîr Çaglayan, li bajarê Cede ya Erebistana Seûdî di bersiva rojnamevanan de got, hekî Tirkiye aşîtiyê pêk bîne, ji aliyê aborî ve wê mezintir bibe û herweha daxwaz ji CHP û MHP’ê jî kir ku di pêşveçûna pêvajoya nû de alîkar bin.

## Turkiye dixwaze konsêrta aştiyê bo hunermend Şivan Perwer lidar bixe



Dewleta Turkiyê bona pêşveçûna pêvajoya aşitiyê di navbera xwe û Kurdan de, birêvebirina konsêrtekê bo sitranbêjê bi navûdeng ê Kurd “Şivan Perwer” û herweha stranbêja navdar a Turk “Sozan Aksû” di Turkiyê de pilan kiriye.

Rojnameya Huriyet a Turkî di raporekê de eşkere kiriye ku weha xûya dike ku konsêrta han li bajarê Diyarbekir, yan jî li bajarê Hewlêrê birêve here. Di raporê de hatiye ku qirare di heftiya dahatî de Serokwezîrê Turkiyê seredana welat Almanyayê bike û li vir Şivan Perwer bibînê û pilana dewleta xwe bigehîne wî.